Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal de

Hejmar: 105
15'ê Şibata 2009
Buha: 150 Tûmen

agiri

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Konferansek Derbarê Pirsa Kurd Li Turkiyê Li Hewlêrê Tê Lidarxistin

Qirar e ku di rojên 15-16'ê Şibata 2009'an de, konferansek mezin û berfireh li ser pirsa Kurd li Turkiyê û pêwendiyên navbera Herêma Kurdistanê û Turkiyê li Hewlêrê bê lidarxistin.

# JI ALIYEKÊ SERDAN, JI ALIYÊ DIN TOPBARAN


**Rizgariya Xezzeyê Li Gerewa Rizgarî ...** 2



**Ji Şoreşê Ve Ber Bi Şevreşê (1)** 4



**Gelî Hevalan ! Eger Hûn Çûn, Min Cî Nehêlin!** 5



**Qelen Kelemek Bê çare Ye** 7



**Felsefe** 9








Hevdem tevî sefera Wezîrê Karê Derve yê Îranê, Menûçêhr Mutekî ji bo Îraqê û Herêma Kurdistanê, hêzên Komara Îslamî bi tundî hin herêmên ser sînor ên Herêma Kurdistanê topbaran kirin.

Di çend rojên borî de, hêzên Komara Îslamî çend gundên ser bi devera Sîdekan û herêmên ser bi bajarê Soran dane ber topan. Heta niha derheq xisar û ziyanên canî û malî ên van topbarane tu zanyariyek nehatiye ragihandin.

Topbarankirina çendîn gund û navçeyên Herêma Kurdistanê ji aliyê hêzên Komara Îslamî û arteşa Turkiyê ji aliyekî din, di dema sefera Menûçêhr Mutekî, Wezîrê derve yê Îranê bo Îraqê û Herêma Kurdistanê her dom dikir. Mutekî di konfernasa çapemeniyê a bi birêz Mesûd Barzanî re, bersiv neda pirsa nûçegihanekê derbarê van êrîş û topbaranên rejîma Îranê.

## Pêşmergeyekî Herî Kevnar Yê Komara Kurdistanê Koça Dawiyê Kir



Mixabin roja înê, 6'ê Şibata 2009'an, **Ebdulqadir Debaxî**, naskirî bi **Mame Qale**, Pêşmergeyê herî kevnar yê Komara Kurdistanê û PDKÎ û herwiha endamê komeleya J-K, di temenê 88 saliyê de li bajarê Londonê çû ser dilovaniya xwe.

Mame Qale xebatkarekî mezin yê rêya serbestiya Kurdistanê, têkoşerekî mandînenas ê tevgera Kurdayetiyê û alîgirê wekheviya jin û û mêran bû. Wî nêzîk 70 salan li jiyana xwe di rêya azadiya Kurd û Kurdistanê de bihurand.

Nemir Mame Qale pirtûkek dewlemend li ser dîroka Komeleya Vejiyana Kurd nivîsiye ku çavkaniyek giring li ser J-K'ê tê hesibandin. Her wiha pirtûkek çîrokan ya nivîskarê Navdar ên Îranî, Sadiq Hidayet kiriye Kurdî û her 2 hatine çapkirin. Çend destnivîsên wî bi cî mane ku çap nebûne. Sedan gotar û lêkolînên wî di rojname û çapemeniyên tevgera rizgarîxwaziya Kurdistanê de hatine belavkirin.

Bi vê hencetê ve, Desteya Weşana Agirî, behî û sersaxiyê pêşkêşî endamên malbat û xizm û kesên wî nemirî û hemû xelkê Kurdistanê dike.

# Rizgariya Xezzeyê Li Gerewa Rizgarî Ji Destê Bazirganên Xwînê

**Mistefa Hicrî**

Şerê 24 rojî yê vê dawiyê ê navbera Îsraîl û Hemasê, di warê xisarên canî û malî de yek ji wan derbeyên mezin û giran bû ku li pey şerê 1967'an yê Ereb û Îsraîlê li Filistîniyan ketiye. Di wî şerî de, li gora serhejmariyan, nêzîk bi 1400 Filistînî hatine kuştin ku nêzîk 30 ji sedê a goriyan xelkê sivîl û jin û zarok bûn û qise li 5000 birîndaran tê kirin. Tevahiya cihê dem û dezgehên leşkerî û îdarî ên Hemasê hatine têkûpêkdan, heta hejmarek nexweşxane, mizgeft û binkeyên Neteweyên Yekbûyî jî bûne armanca êrîşên balafirên şerker ên Îsraîlê û hemû ew avahî û xanîberên ku bi alîkariya welatên xêrxwaz û NY hatibûn çêkirin, bi axê re bûne yek. Endamên hinek ji malbatan bi tevahî ji nav çûn û bi hezaran malbatên din jî xembar û kuldarê jidestdayîna yek yan çend kes ji ezîz û xweştiviyên xwe bûn û divê niha şûnde bi derd û êş û azarên siqet û kêmendambûna kesanek ji endamên malbatên xwe ve binalînin. Sedan malbatan, mezinên malên ku debara jiyana wan dikirin û nanê rojê ji wan re peyda dikirin, ji dest dan û ji vê çendê ku hebûn, rojreştir û bextreştir bûn. Bi kurtî şerê Xezzeyê tirajîdyayek mirovî bû ku dilê hemû mirovekê hejand.

Bê guman ziyan û xisarên vî şerî ji bo xelkê xizan û belengaz yê Felestînê gellek ji vê çendê berfirehtir û kûrtir e ku ragihandinên giştî di dema şer de îlan kirin, lê li vir merema me ne şirove û analîzkirina xisarên wî şerî ye, belkî em dixwazin bi kurtî li ser sedemek ji sebebên bingehîn yên vê bûyerê rawestin û dest danên ser xalekê ku kêmtir bala xelkê cîhanê û herêmê bo aliyê xwe rakişandiye, an aliyê kêm bi sedema hinek têdîtinan nexwestine bas jê bikin.

Piştî şerê bi nav û deng ê Îsraîl û Ereban di sala 1967'an û dagirkirina beşeke zaf ji axa Ereban, di destpêkê de dirûşmên hemasî û gefxwarinên bênaverok ji hemû aliyekê ve li dijî Îsraîlê bilind bûn, lê piştî heyamekê, ji bo hinek ji wan welatan ku jîrtir bûn, eşkere bû ku rastî pirr ji vê yekê zeqtir û cudatir in ku bi dirûşm û siloganan bihên guhertin, lewra dewletên han ketin gotûbêj tevî Îsraîliyan û axa dagirkirî a xwe wergirtin û ketin têkiliyên eşkere an nepenî bi Îsraîlê re. Rêçşikandina vê pêvajoya nû di nava welatên Erebî, vedigere bo têgihîştin û şirove û dahûrandina kûr a siyasî ya Enwer Sadat serokê wê demê yê Mîsrê. Ev riçeşikandine di wî warî de pirr girîng bû ku di vê fezaya ihsasî û tejî dirûşm a ku li dijî Îsraîlê pêk hatibû, qisekirin li ser bi fermînasîna wî welatî û gotûbêjkirin tevî Îsraîlê, hewcedarî bi netirsî û biwêriyeke zaf hebû ku ev yek tenê di Sadat de hebû. Sadat, bi tab û tehemûlkirina hemû buxtan û gefxwarinên neheq li ser xwe ji aliyê welatên Ereb ve, lê bi destkevtên pirr girîng û bihagiran ji bo welatê xwe ku azadkirina axa dagirkirî bû, kete gotûbêj tevî Îsraîlê û canê xwe jî di vê rêyê de ji dest da. Li pey Sadat, ew welatên din ku axa wan hatibû dagirkirin, ew rêç girtin pêşberî xwe û her yek ji wan xwe ji pirsgirêkan bi Îsraîlê re dûr xist.

Di vê navberê de yê ku bû gorî, xelkê lêqewmayî ê Filistînê bû ku bû bi karta lîstika hinek ji welatên qazancperest ên Ereb û navçeyê, bona ku bi qîmeta qurbanî û xizaniya wî xelkê reben û hejar, bi awayekî rûyekî hêsirên heram ji bo Îslamê û xelkê Filistînê hilwerînin û di bin de jî her yek ji wan bi curekê qazanc û berjewendiyên xwe dabîn û misoger bikin. Ev girûp û aliyên ku li pey vêc û berjewendiyên xwe di herêmê de digerin û berjewendiyên wan di gerewa domkirina şerê navbera Îsraîl û Felestînê de ye, li ser rêya her gavekê ku ji bo aştiyê bihê hilgirtin, kosp û astengan pêk tînin.

Yek ji wan dewletan û li serveyî tevan, Komara Îslamî a Îranê ye. Rejîmk ku herî zêde berjewendiyên xwe di rijandina xwîna jin û zarokên Filistînî û wêrankirina ax û xizan û belengazkirina wan bi destve tîne. Wê roja ku gelê Filistînê weke welatên di ên Erebî tevî Îsraîlê bigihîje aştiyê, dibe roja reş û xem û kulan ji bo Komara Îslamî û tu hêcet û mihaneyek li ber dest de namîne ku xwe di bin de veşêre û biqelizîne û siyaseta destdirêjker a xwe di deverê de bibe pêş û pêyên şoreşa xwe danê wê herêmê. Lerwra Komara Îslamî dijmin û astenga herî mezin a aştiyê di Rojhilata Navîn de ye. Heke di êrîşa vê dawiyê a Îsraîlê de jî hemû cîhanê daxwaza rawestandina şerê dualî dikir, Komara Îslamî, dihola şer lêdixsit û bi lidarxistina meşan li bajarên Îranê û bi rûyekî navnivîsînkirina hejmarek ji ciwanên ku ser bi wê rejîmê bixwe bûn, di girûpên xwekujî de û haydana Hemasê ji bo domkirina avêtina roket û mûşekan ji bo axa Îsraîlê, neft bi agir de dikir, lê bi kiryar çi nedikir. Ji bo rejîma Komara Îslamî ne girîng e ku Filistîn di bin agirê bomebarana Îsraîlê de dişewite, xelkê wê tê qirkirin yan ji ber birçîbûn û bêdermaniyê dimirin, ji wan re giring eva ye ku bi xwekujî û malwêraniya xelkê lêqewmayî yê Filistînê bi roketên destçêkirî ên Hemasê ku tenê heta 30 kîlometran diçin û di heyamê ew 24 rojên şer de, tenê 7-8 Îsraîlî kuştin, tevî dewleta Îsraîlê şer bike û xwe bike qehremanê Misilmanên cîhanê! Hewce ye xelkê Filistînê, piştî ceribînên dehan salî û ew hemû rûreşî û bedbextiyên ku di vê heyamê de hatine serê wan, bi qebûlkirina aşitiyeke adilane bi Îsraîlê re, berçêla xwe li nav çeng û lepên Komara Îslamî û hemû bazirganên xwîn û rondikan li herêmê rizgar bikin û pişta xwe bidin ew Dolarên ku Komara Îslamî di pêxema awareyî, xizanî û çavlidestbûna hetahetayî de ji wan re dişîne.

Azmûna rohn û aşkera a Komara Îslamî di dema 30 sal desthilatdariya xwe de, ew rastiye ji hemû xelkê re derxistiye holê ku Komara Îslamî a Îranê berevajî dirûşmên xwe ên birîqedar, ne dilê wê ji bo Îslamê dişewite û ne ji bo rojreşiya xelkê Filistînê, belku tenê dilê wê ji dan û standin û berjewendiyên xwe re dişewite, heta bi nirx û qîmeta xwîn û hêsirên ne tenê Filistîniyan, belkî hemû Misilmanên cîhanê kuta dibe. Heke ne wisa ye, çima li hember ew zilm û stemkariya li ser Misilmanên Çeçêna bin destê Rûsyayê heye, çav miçandiye û peyvekê jî naîne zimên? Çima li hember Misilmanên Çînê de, bêdengî girtiye pêş weke tu bêjî di wî welatî de Misilman tu nînin? Ji vê çendê zêdetir jî, Komara Îslamîyek ku rehmê bi xelkê xwe nake ku Misilman in, kî bawer dike ku rehm û dilovaniyê bi xelkê reben û rojreş yê Filistînê bike?



Kerem bikin weke nimûneyeke zindî, em çavekê ji van serhejmariyane bikin ku pirraniya wan ji hêla dem û dezgehên rejîmê bi xwe ve hatine ragihandin:

- Di warê tenduristiyê de Îran di nava 191 welatên cîhanê de, pileya 112 heye.
- 20-25 ji sedê a xelkê tevî xetera nexweşiyên pîskolojîk û derûnî berbirû ne.
- 20 ji sedê a kesên ku di bajaran de kar dikin û ew kedkarên ku di wan kargehan de dixebitin ku kêmtirî 5 kes karker têde ne û bîmeya xanenişînkirinê tu ninin, hejmara wan digihîje 14 milyon kesan.
- 14 milyon kes di bin hêla xizaniyê de dijîn.
- Asta enflasyon (awsan)a aborî li Komara Îslamî ji 29 ji sedê nêzîk bûye û di pileya yekem an duyem a wan welatan de ye ku rastî kirîz û qeyranê bûne û nirxa awsanê di wan de ji hemû welatan zêdetir e.
- Radeya Bengdar (kesên ku madeyên bêhişker dikşînin) nêzîk 4 milyon kesa ye.
- Di rapirsînekê de ku li Îranê hatiye kirin, %75 ji wan kesên ku bersiva wê pirsê dane ku "di navbera pirsên girîng ên hundirê welat de, 2 pirsên herî giring çi ne?", %75 ji wan kesan bersiv dane ku bêkarî, xizanî û awsana aborî pirsgirêkên herî giring ên îro yên Îranê ne.

Diyare ewane ew serhejmarî ne ku berî kirîza aborî ku cîhan dagiritye, hatiye ragihandin, niha qas û radeya kêmasiyan û xizaniya xelkê gellek ji wan amarane zêdetir in. Xelkê Filistînê bila vê pirsê ji xwe bikin ku rejîmek ku bi hemû dahat û dewlemendiya ku heye û xelkê wê di wê rojreşiyê de bijîn û rehmê bi wan nake, çawa dê rehm û dilovaniyê bi xelkê Felestînî bike û bi rastî berevaniyê ji wan bike heta bigihîjin mafên xwe?

Xelkê Filistînê hewce ye wê rastiyê fêm bikin heta wê dema ku çav li dest û hevkariyên Komara Îslamî û hinek aliyên din hebe, heta di bin siya wî welatî de serxwebûna xwe ava bikin, dê her di wê rewşê de bin ku hene. Lewra rizgariya Xelkê Filistînê li gerewa bikaranîna siyaseteke rastbînane a dûr ji hutav û dirûşmên agirîn yên Komara Îslamî û binav dostên din û di rastî de dijimanên wan de ye. Em gelê Kurd li Kurdistana Îranê û gelên din ên Îranê ku tûşî stem, zordarî û serkutkirina rejîma Komara Îslamî ne, hêvî û xweziya me Felestîneke serbixwe û xelkeke bextewer li kêleka Îsraîla cîranê wan û rizgarbûna wan ji çengên Komara Îslamî ye û hetanî xwe ji çeng û lepên Komara Îslamî a Îranê rizgar nekin, nagihîjin hêvî û xweziyên xwe.

# Daxistina Sînoran, Xebat li Dijî Qaçaxê Yan Tirs Ji liv û Tevgerên Opozîsyonê?

**Agirî-Kurdistanmedia**

Yek ji çavkaniyên sereke ên dahat û hatiniya xelkê Kurdistanê, nemaze gund û bajarên ser tixûban, anîn û birina alav û tiştan bi awayê qanûnî û ne qanûnî bo ser sînorên Kurdistana Îranê tevî Îraq û Turkiyê ye.

Awayê qanûnî yê anîn û birina alav û tiştan li ser sînoran ji rêya wan bazaran tê kirin ku ji aliyê rejîma Komara Îslamî a Îranê ve hatine avakirin.

Di van bazarane de bac li ser alav û tiştan tê danîn, lê pirraniya xelkê Kurdistanê bi sedema nedarî û xizaniyê nikarin ew baca ku li ser tiştan tê danîn, bidin. Lewra bi neçarî rêya ne qanûnî digirin pêşberî xwe û bi xeterxistina canê xwe, anîn û birina tiştan ji rêya têledarî, otombîl û dewaran birêve dibin.

Ji bo berengarîkirin tevî vê vetîr û fenomenê, hêzên bi nav "Întizamî" ên Komara Îslamî a Îranê boseyê ji bo kasibkarên ser sînor didanên û wan didin ber êrîşa guleyan.

Bi vê sedemê roj nîne di Kurdistanê de kasibkarekî ser tixûb nehê kuştin an birîndar nebe.

Vê dawiyê rejîma Komara Îslamî a Îranê bi gotina xwe bona tunekirina vê diyardeyê, gelaleya daxistina sînoran anî holê.

Pasdar Ehmedriza Radan, Cîgirê Fermanderê Hêza "Întizamî", armancên vê gelaleyê xebat li dijî qaçaxa tişt û dan û standinên ne qanûnî, xurtkirina aboriya welat, pêşîgirtin ji êrîşa çandî û parastina çanda Îrana Îslamî, baştirkirina rewşa akinciyên deverên ser sînoran û wd... ragihand.

Wî çêtirkirina rewşa aborî a xelkê Kurdistanê ji rêya zindîkirina beşên cotkarî û wan karxaneyên ku di bere berê daxistinê de ne, da zanîn.

Îsal bi sedema hişkesaliyê, cotkarên Kurdistanê tûşî zirar û ziyaneke zaf bûn, rejîma Komara Îslamî ne tenê tu alîkariyek bi wan re nekir, belkî mecbûr bûn ji bo debara jiyana xwe rû li Kedkariyê di bajarên din ên Îranê de bikin.

Her wiha Karxaneya ristin û raçandin ya Kurdistanê bi sedema pirsgirêkên aborî hate girêdan û di vê derbarê de rejîma Komara Îslamî tu alîkariyek nekir.



Niha jî fabrîkeya Traktorsazî ya Kurdistanê rastî kirîza aborî hatiye û bi vê sedemê karker di bin zext û givaşan de ne.

Çend meh dibe ku miaşê hejmarek zaf ji kedkarên Projektên bendavan, kargeh û ... ji wan re nehatiye dan.

Hinek ji nûnerên bajarên Kurdistanê di Parlemantoya rejîma Komara Îslamî de, daxwaz kirine ku berpirsiyarên têkildar herdem tevî gelaleya daxistina sînoran, çareseriyan ji bo peydakirina kar bo xelkê akincî ên tixûban bigirin pêşberî xwe.

Lê di vê derbarê de ne tenê tu hewlek nehatiye dan, belku hêza leşkerî rojane êrîşan dikin ser kasibkaran û dest bi ser alav û tiştên wan digirin, ji ber vê yekê ziyanên zaf digehînin wan.

Ji bo daxistina sînorên Rojhilatê Kurdistanê ji awayên cur bi cur ên lêdana rê û cadeyên sînorî, danîna burcekên zêrevanîkirinê, lêdan û çêkirina kanalan, lêdana têldiriyê, danîna dîwar, alavên elektronîkî, çandina mayînan bona teqînan û wd... mifah hatiye wergirtin.

Ewa jî vê yekê derdixe holê ku rejîma Komara Îslamî a Îranê bilî xebat li dijî qaçaxa tiştan, dixwaze rê û cihên ewlekarî ên tund li ser sînoran bigirin pêşberî xwe û hemû liv û tevgerên asayî û normal bixe bin çavdêrî û kontrola xwe.

Her wiha bi daxistina tixûban dixwaze amadekariya tekûz û temam ji bo berlêgirtin ji egera her cure liv û tevgereke partiyên Kurdistanî ên dijberê xwe bike.

Komeke berçav ji kasibkar û têledar ji rêya dana rişwet û bertîlê bi hêzên "Întizamî" û di bin çavdêriya van hêzane de, alav û tiştan ji her du aliyên sînoran tînin û didin.

Heta ji bo veguhastina alav û tiştên xwe ji bo bajarên hundirê Îranê, kasibkar bi rêya bertîldan bi wan hêzane mifahê werdigirin.

Eva tê vê wateyê ku heke hêzên "Întizamî" bixwazin, dikaribin bê meşandina rêyên tund ên daxistina tixûban heta radeyeke berbiçav pêşgiriyê ji qaçaxa tiştan bikin.

Danîn û çêkirina dîwar bi dirêjahiya çend kîlometran li sînorên Pîranşarê, danîna binkeyên Leşkerî û çekdarî li tixûbên din ên Parêzgeha Azerbaycana Rojava û gelaleya vê dawiyê ya daxistina sînorên Parêzgeha Kurdistanê zêdetir nîşanderê tirsa rejîmê ji her cure liv û tevgereke hêzên opozîsyonê û egera êrîşa derekî ji van sînorane ve bo ser Îranê ye ku di bin navê "Xebat li dijî qaçaxa alavan" dimeşe.

**Mafê Mirovan**



**Nivîsîn: Peter R. Baehr**
**Wergeran: Mecîd Heqî**

# Rola Mafê Mirovan Di Siyaseta Dereve De

**380**

***Destpêk: Mafên takekes***

Bi awayê ku mafên mirovan hatiye şirovekirin, dewleta Holandê hin mafên ku ji aliyê girûp û desteyên mirovan tên bikaranîn, bi fermî nas kiriye. Bo mînak em dikarin qala mafê pêkanîna komele û saziyan, mafê li hev civînan, mafê kêmaniyên zimanî û etnîkî ji bo pêşvebirina ziman û çanda xwe û herwisa mafê gelan bona diyarîkirina çarnivîsa xwe. Bi baweriya Wezareta Dereve ya Holandayê, hegera qebûlkirina mafê diyarîkirina çarenivîsa xwe wek mafê mirovan ewa cibicîbûna wî mafî wek pêşmerca pêşveçûna takekes û rêyek e bona rêzgirtin li hurmeta mirov.

Ew tekezkirina han li ser mafê takekes, nêzîkbûna *Rojava* bi pirsa mafê mirovan nîşan dide. Ez dê basa wê mijarê bi awayekî berfirehtir di beşa "nisbiyeta çandî[1]" de şirove bikim.

Wê gavê ewa diviya bê gotin ku dîtinek din heye ku li ser mafê kolektîv (kom,hevbeş) tekezê dike û nirxên xwe di çarçoveya mafên kolektîv de dibîne û bi vî awayî ew dîtine hewcehiyek bi pêşveçûna mafê takekes nabîne. Lewra belgeya herî giring ya mafên mirovan li Afrîqa bi navê "Peymana mafê mirovan û *xelk"* (dagirtin ya nivîskar) hatiye binavkirin.

Ez dê piştre li ser encama wê nêrîn û dîtinê biaxivim. Li vir divê bê gotin ku pêşveçûna mafê takekes zemîneyek giring bo fêmkirin li mafê mirovan pêk tîne, lê ewa tenê rê nine.

***Belgenameyên destpêkî***

Her du (2) belgenameyên herî giring ên mafê mirovan ên Rojava ne. Daxuyaniya Mafê Mirovan li Vîrgîniya a sala 1776'an, ku di sala 1791'an de di destûra Dewletên Yekgirtî yên Amerîka de hate cihkirin û deklarasyona mafên mirovan û welatiyan di sala 1789'an de. Her du belgename di nava xwe de ji bo bihêzkirina azadiya takekesî lîstek ji mafê mirovan rêz kirine. Gellek ji wan mafane nivîsînên pirspor û feylesofên siyasî wek 'John Locke', 'Montesquieu' û 'Jean-Jachques Rousseau' in.

Pêşgotina Peymannameya Netewên Yekbûyî bi eşkere li ser bingehên mafê mirovan diaxive. Paragrafa 3 ya Benda 1 hegera pêkanîna Neteweyên Yekgirtî bi vî awayî şirove dike: "Bo gihîştin bi hevkariyeke navnetewî bo çareserkirina pirsgirêkên navnetewî ên aborî, civakî, çandî an karekterên mirovanî, û ji bo pêşvebirin û handana rêzgirtin li mafên mirovan û bo azadiyên bingehîn bêy berçavgirtina regez, cins, ziman û ol." Ev yek bû sedema pesendkirina Carnameya Gerdûnî ya Mafê Mirovan di Civata Giştî ya Neteweyên Yekbûyî di sala 1948'an de. Ew Carnameye wek "standardek havbeş ji bo hemû mirovan û netewan" hatiye bocîkirin.

**RONÎ**

Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên "Agirî" re

**Ebdullah Hicab**



# Ji Şoreşê Ve Ber Bi Şevreşê (1)

Serhildana sala 1979'an li Îranê, rêjîma desthilatdar ji kar xist, hemû karbidestên siyasî û birêveber guherîn û îdeolojî û îdealên nû danîn dewsa yên berê. Ji wê bi der, pêvajoyek nû ya ber bi paş ve li welat da destpêkirin. Ji wê demê ve, rêjîma nû hem di asta hundir û hem di asta navneteweyî de bû çavkaniya tundûtûjî, pirsgirêk û şerûdiyê. Lewma serhildana 1979'an weke şoreşek nîvço ma û ji daxwaziya gelên welat û armancên xwe yên siyasî veqetiya.

Sal pirr zû tên û derbas dibin. Şeva reş ya zordarî û çavsoriya ku li encama serhildana sala 1979 û destpêkirina desthilatdariya rêjîma Komara Îslamî li Îranê dest pê kir, di wan rojên dawî de 30 saliya xwe tewaw kir. Di wan salan de sînorê binpêkirina mafê mirovan li Îranê, ji rêjeyê çûye der û tu mafên siyasî, civakî, kultûrî, aborî û neteweyî ji bo çi yek ji gelên welat nehatiye naskirin. Îran ewa 30 sal e bûye urdûgehek komî serhev ya zordarî, tundajoyî û cinayetan.

Gelo, hegerên bingehîn yên serhildana sala 1979'an çi bûn, rehên tevgera ku di wê salê de, rêjîma Şah hilweşand ji ku dest pê kir, çima komek ji Melayan karîn bibin desthilatdar û tevgerên siyasî yên layîk, çep û demokrat ji ber çi sedemê li pey pêvajoya siyasî re man û nekarîn karîgeriyê danên ser meşa bûyeran? û ji bo pêşerojek geş, çi tê kirin?

Zincîreya van pirsan dikare gellek dirêj be, û ji her pirsekê re jî bê guman bersivên cuda û pirr alî hene. Pêvajoya guhertinên aborî û civakî li Îranê ku di dawiyê de daxwazên siyasî yên nû anîn rojevê û dijberiyek xurt bi sîstema paşatiyê re bi rê xist, vedigere ser salên 1950 (1330) û pêve. Di wan salan de, 6 faktorên çarenivîssaz karîgerî xistin ser pêwendî û rewşa civaka Îranê:

- Hilkişiyana buhayê neftê (petrolê), derfet da rêjîma Şah ku perê ji wê riyê ve bi dest dixe, di pîşesaziya modern de razîne, û hêdî hêdî bingeha aboriya Îranê biguhere.
- Beşek berbiçav ji xelkê welat ji gundan re ber bi bajaran koç kirin, û tevlî jiyana hevdem bûn. Ev jiyan têkilî û danûstanên li ser bingeha maf û erkan dikire cîgirê pêwendiyên xizm û kesitiyê.
- Pîşesaziya nû gul veda û kargeh û fabrîkeyên mezin li hin bajarên navendî hatin avakirin.
- Sîstema perwerdeya nû, ber bi hindê ve çû ku kultûrek nû ava bike, û ziman û kodên kultûrî yên nû bike cîgirên kodên kultûrî yên civaka kevnar.
- Çalakbûna beşek pitir ji civakê di çarçoveya derveyî malê û jîngeha gund û herêmê de, çînên nû anîn meydanê. Çîna nû daxwazî û hêviyên cuda hebûn.
- Piştgirên hertimî yên desthilata siyasî ku heta wê demê Mela û medreseyên ayînî û bazar (firoşiyar û bazirgan) bûn, êdî xwe û berjewendiyê xwe di çarçoveya berjewendiyên sîstema desthilatdar de nedidîtin.

Bi wê rewşê re, rêjîma Şah pilanek berfireh ji bo reforman di warê aborî, kultûrî û civakî de dest pê kir, ku ji sala 1962 û pê ve ew pilan hate birêvebirin. Şah, navê reformên xwe danî "şoreşa sipî" û pilan kir bi riya wan reforman civakê modernîze bike, lê di heman demê de pitir civakê bi xwe ve girê bide. Lewma, ew pilan tenê di çarçoveya aborî û civakî de hêla û rê neda ku hevdem reformên siyasî jî bêne destpêkirin.

Guhertina rewşa aborî û civakî, daxwazên siyasî yên nû anîn rojevê, lê rêjîmê tu derfet nedan ew daxwaz bikevin kanalek siyasî ya legal (yasayî). Qatên nû yên civakê mîna karmend, rewşenbîr, hunermend, mamosta, karker, xwendevan, jinên çalak û hwd bi daxwaziyên siyasî yên nû berê xwe dan qadên siyaset û biryardanê. Lê tu derfet li ser riya xwe nedîtin. Ji aliyekê ve parsenga navbera daxwaz û derfetên siyasî tev çû, ji aliyê din ve piştgirên kevneşop ên sîstemê pêngav bi pêngav pişta xwe dane Şah û rejîma wî. Dema tu hêvî bona beşdarîkirin li pêvajoya biryardana siyasî di çarçoveya desthilatê de nema, êdî asayî bû ku her kes berê xwe bide rê û rêbazên alternatîv. Heke heya wê demê bi tenê partiya çepgir ya Tûde û hin kesayetiyên olî, li ser siyaseta Îranê xwedî axaftin û bandor bûn, ji wê demê ve çalakên nû ketin meydanê û têkoşîna siyasî li Îranê ber bi riyek radîkal ve meşiya.

Li hember pêlên nû yên xebata siyasî, rêjîma Şah hê pitir dest avêt kontrol û zordariya siyasî. Di encamê de tu derfet ji bo xwe birêxistinkirin û çalakiyên organîzekirî neman. Partî û rêxistinên nû avakirî ketin nava têkoşîna veşartî û her dema ku derfet bidîtana çalakiyên tund li hember rêjîmê de encam didan. Rêxistina Çirîkên Fidayî weke hêza alternative ya çepgir, Mucahidînê Xelq wek alternatîva olî ya guhertinxwaz, hêzên ji neteweyên derveyî bazneya desthilatê û bi taybet li Kurdistanê, hemû bi yek şeklî ketin ber pêla serkutkarî û girtin û kuştinê. Tu ji wan hêzan kanalek ji bo pêşvebirina mesaj û programên xwe yên siyasî tunebûn.

Di wê navberê de, yek alî ji hemû aliyên din pitir derfeta pêşveçûn û gulvedanê bi dest xist. Komeleya Hevbendiya Wefdên Îslamî yan Cemiyetê Heyethayê Muitelifeyê Îslamî (pêşengên Partiya Muitelifeyê Îslamî ya demê) ku li sala 1963 (1342), ji hevgirtina 3 komeleyên Mizgefta Şêx Alî, komeleya wefdên Îsfehan û wefda Mueyed pêk hatibû, heke ne rasterast be jî, lê bi awayek nîv vekirî çalakiyên siyasî di bin siya dîn de pêşve bir. Ew hevbendiya ji Melayan pêkhatî, tora berfireh ya mizgeftan kire kanala here xurt ya propagandaya siyasî. Ji bê derfetiya partiyên layîk û pêşketinxwaz, meydan bû ya komeleyên bi Xumeynî ve girêdayî.

Li gor kultûra siyasî ya Îranê, hertim Mela û mizgeftên şîe piştevanên sereke yên Şah û sîstema paşatiyê bûne. Lewma rêjîma Şah gumana hindê nebû nanxorên li ser xana Şah rojekê agir berdin xaniyê xanexwê xwe û xanî ji kokê ve hilweşînin. Lê hesaba rêjîmê şaş derçû. Xumeynî bi riya mizgeft û Melayan re mesaja xwe ya siyasî bi awayekî berfireh di nava alîgirên xwe de belav kir. Kevneşopiya şîe ku rojên Aşûra, Erbeyîn, bûn û çûna hemû îmam û pêşewayên olî bi rêûresmên berfireh birêve dibe, îmkanek hê mezintir da Xumeynî heya xelkê ku ji rêjîmê nerazî bûn, derbazî meydana têkoşîna li hember Şah û rêjîma wî bike.

Alîgirên Xumeynî li destpêkê, bi dirûşmên siyasî yên li dijî dîktatorî û rewşa siyasî yên welat, pêla dijberiya bi Şah re bi rê xistin. Dema tevgera gelemperî li hember rêjîmê bi rê ket, baweriyek wisan di nava civakê de çê bû ku Xumeynî dê heta roja serkevtina serhildanê bi pêvajoya siyasî re be û paşan dê mîna pêşengên xwe, Muhemed Tebatabayî, Abdullah Bêhbehanî û Ayetullah Kaşanî meydana siyasetê ji siyasetvanan re bi cî bihêle. Her 3 Ayetullahên beriya wî, rolek xurt di pêvajoyên siyasî yên serdema xwe de hebûn, lê kes ji wan mîna serok û Welî Feqîh siwarê pêlên hest û daxwaziyên xelkê nebû. Di bin siya wê baweriyê de, ji bo xelkê û heta siyasetvanên xwedî ezmûn jî pirr hêsan bû ku baweriyê bi gotinên wê demê yên Xumeynî û alîgirê wî bikin. Lê ew hatin xapandin û pê nehesiyan ka çawan siloganan rengê îdeolojiya Xumeynî bi xwe ve girtin û êdî ber bi tundajoyî û dîktatoriyê ve herikîn.

Di beşa 2 û dawî de: Rewşa Îranê ya piştî sala 1979 …

# Gelî Hevalan ! Eger Hûn Çûn, Min Cî Nehêlin!



**Silêman Keleşî**

Em gihîştin oda xewê û hevalan çek û rextên xwe danîn û yek yan du kes çûne ber derî ku dest û çavên xwe bişon. Me li ber soba daran ku diteyisî û gurpegurp lê dihat û germahî dida odê, cihê xwe xweş kir. Xwediyê malê pirs kir ka emê nan bixwon yan çayê, min jê re got ku ez digel xwarin û vexwarinê ninim û ezê razêm. Hevalên din jî her yekê tiştek got. Em di wê gotegotê de bûn ku gazî kirin û gotin:" gelî hevalan rabin, Pasdaran gund girt!"

Di destpêkê de me bawer nekir ku tiştek wiha bi lez û bez çê bibe û Pasdar bên nava gund. Ji ber ku tîmeke mezin ji bo wê meremê hatibû destnîşankirin û beriya rojekê li wir cihgir bibû. Lê mixabin ew xebera rast bû.

Kekê Mecîd Nûrî ji min re got: "Rabe! Tu taze nikarî binivî". Min jî jê re got ku çeka min li cem Dirbo ye! Bêy vê ku em bikarin bêhna xwe vedin yan jî nan û çayê noş bikin, em ji wê malê derketin. Baş bû ku her di wê demê de Dirbo hat cem me û çeka min da min û şer dest pê kir. Kekê Mecîd jî di havîna sala 1364'an a Rojî (1985), li gundê Kanîsipiya devera Tirgewer di şer de Şehîd bû.

Divê bê gotin, mixabin ew tîma ku bi Fermanderiya Şehîd Mela Xalid Baqî çobû gundê Berdiyanê, erk û wezîfeyên xwe li gor bernamê bicî ne anîbû. Wan diviya hemû ciyên hesas û stiratêjîk ên derdora gund bigirtibana bin kontirola xwe heta ku ew hêzên emeliyatî bi xatircemî ve hatiban û li gund cih bigirtiban. Me dizanî ku piştî wê operasiyonê dê dijmin bixinzire û êrîşê bike ser Pêşmergan.

Dijmin hertim li pey derfetê digeriya ku derbê li hêzên me bixe. Bi xasmanî piştî wan şerên ku di nav dilê dijmin de hatin kirin, hevalên berpirs bi başî ew hereketane pêşbînî kiribûn. Ji ber wê yekê ew hêza mezin rojekê berî hatina me bo Berdiyanê li gund cihgir bibû. Lê mixabin hevalên tîma parastinê sistî kiribûn û her zû senger û çeperên ciyên ku divêt bernedaban, her zû cî hêlabûn û hatibûn bo gund. Her piştî wan, hêzên dijmin ku ji bajarê Selmas û Urmiyê re hatibûn, ciyê wan girtibûn. Belê, me careke din çek û rextên xwe hilgirtin û ber bi aliyê sengerên dijmin çûn. Gava mirov mêzeyî Pêşmergan dikir, qet westiyan û mandîbûn bi wan ve xuya nedikir û mirov digot ew qet rê nehatine û mandî nebûne. Peyt û çeleng ber bi tapî û kozikên dijmin dimeşiyan. Pasdaran xêncî hindê ku serê gir û çiyayên bilind girtibûn, heta nêzîkê gund jî hatibûn pêş, bêyî ku heval pê bihesin. Heta Pêşmergan hindek xwe ser û ber kirin, hêzên dijmin jî xwe li malan nêzîk kirin.

Hêzên Komara Îslamî a Îranê wisa hatibûn serwextkirin ku hêzên Pêşmerge mandî û nerazayî ne û renge fîşekên wan jî kêm bibin. Yanî bi hêsanî me bikujin yan jî êxsîr bikin. Hêzên dijmin ew gotin bawer kiribûn û kom bi kom dihatin bo nava gund. Lê nedizanîn xweşmêrên çeleng ên Demokrat li 'Şimal'a Kurdistanê sîngê xwe danîne ser berfê û çeper û kozik girtine û dem û deqîqan dihejmêrin heta ku hêzên zilm û zorderên degirker ji wan nêzîk û nêzîktir bibin, bona wê yekê ku dersekê bidin wan û fermanderên wan ku heta hetaye ji bîra wan neçe û qet wisa nefikirin ku Pêşmerge mandî û nerazayî, nikarin li hember kirêgirtiyên dijmin de şer bikin.

Şer dest pê kir û dijmin ku xwe li malan nêzîk kiribû, ji hemû aliyan ve kete ber agirê tund û tûj ê şervan û mêrxasên azadiyê. Hêzên dijmin her nedizanîn ka li kîderê û çawa agir bi ser van de dibare. Pêşmergan digot ku em her nêçîrek han digeriyan, lê ew bi xwe hatin û xwe xistin tellikê.

Piştî demeke kurt, lê belê di şereke dijwar û dest bi pêsîr de, hevalan karîn Pasderên kurdkuj ku li dora gund bûn û dixwestin dakevin nava gund û Pêşmergan bikujin û yên dimînin jî bi êxsîrî bigrin û ji bo rêberên xwe bi diyarî bibin û li hember de xelata wê diniyayê bi nextî werbigrin û ya axiretê jî bi qer bihêlin! lê felek tevî wan yar nebû. wan nekarîn di karê xwe de serkevtî bin, heta xelata wê diniyayê wergirin û ez bawer nakim ya axiretê jî bistînin. Ji ber ku ew ji bo kuştin, talan, malwêranî, binpêkirina maf û azadiyên xelkê û kuştina parêzvanên gel hatibûn û ew yeka jî ji bo wan cihê şerm û rûreşiyê ye heta xelat û beratwergirtinê.

Ew Pasderên ku hatibûn dora gund û ji bo kavil û wêrankirina malên xelkê hatibûn, her zû mala wan bi xwe re wêran bû, heta yek kes jî li wan nekarî bi saxî vegere û bo axayên xwe bas bike gelo çi bû û çi qewimî û mala wan

**Beşa 3**

çawa wêran û korocax bû.

Lêbelê her wek hat diyarkirin, serê çiya û ciyên bilind carê di destê wan de ye, lê rastî carê nedizanîn ku ew hêzên ku daketine dora gund, çi jê hatine û li man û nemana wan bêxeber bûn, ji ber vê hindê jî gund û dora wê topbaran nedikirin, ew yeka jî ji bo me derfet bû ku em ji bo girtina serê çiya û ciyên bilind ku di destê wan de bû hewlê bidin.

Ewa bû ku piştî komkirina çek û sîlahên kesên ku hatibûn kuştin, bername hate danîn ku wan cihên bilind û stiratejîk jî li destê wan derxin, ji ber wê yekê û eger ew cih her di destê wan de bin, liv û hereketên me pirr zehmet dibin û kontrola meydana şer jî dikeve destê wan, semxeratî hindê ku kontrola qada şer bikeve destê Pêşmergan, her di wê derfet û zirûfê de ku dijmin çi ji rewşa hêzên xwe nizane, dema herî baş e ku em ji bo girtina wan ciyên bilind bikevne liv û xebatê, ewa bû ku çend desteyên piçûk piçûk ji bo girtina wan çeper û sengerên ser çiya çûn, wan desteyên piçûk lêbelê pirr qehreman û netirs, gellek bi lêzanîn û çelengane, bi hejmar kêm, lê bi bawer kûr û mezin xwe ji sengerên dijmin nêzîk kirin û bi narincok û ARPG'yan li sengerên wan xistin.

Wê demê zanîn ku hêzên wan çobûn û li derdora gund nemane, wextê dijmin xatircem bû ku hêzên wan sax nemane, derdorên gund û sengerên Pêşmergan dane ber topbaraneke tund.

Divê bête gotin piştî şereke tund û bêhevta de, çend ciyên bilind û stiratejîk ku zal bûn bi ser gund û meydana şer, ji destê dijmin hate derxistin. Di wî şerê giran de ku çend ciyên girîng ketine destê Pêşmergan de, gellek hêzên degirker hatin kuştin û birîndarkirin ku meyt û cenazê dehan kes ji wan di meydana şer de ketibûne ber destê parêzvanên Kurdistanê. Mixabin di wî şerî de hevalekî Pêşmerge bi navê **Fîroz Omerî** xelkê gundê Axçeqelê birîndar bû, ku demekê bi birîndarî di navber sengerên me û dijmin de ketibû û îmkana anîna wî pirr zehmet bû, lê hevçeperên Fîroz nedikarîn sebir û tabê bikin ku hevalê wan wisa bi birîndarî li ser berfê binalîne, kes nikaribe birînên wî derman bike, lewra bi fîdakariya çend

hevalan hate derbazkirin, her di wextê anîna wî de, gula 2’yê jî ser milê Fîroz ket, ku mixabin roja duyê di şerê gundê Ceterê de şehîd bû.

Bona vê çendê ku dijmin bikare careke din wan çend sengera bigre, gellek zext û givaş ji bo Pêşmergan anî, lê derseke wiha nehatibû danê ku hêzên dijmin careke din her wisa rasterast bera xwe bidne kozikên mêrxasên Demokrat li gundê Berdiyanê, û şerbeta hevalên xwe vexon! ewa ku destê wan hat bikin, tenê ewa bû ku wek pîşe û exlaqê nemirovane hemû cî dane ber top û çekên xwe yê dûravêj.

Bi her awayekê be Pêşmerge wek parêzvanên Kurdistanê, sibê zû heta êvar singê xwe danîne ser befra sipî û tezî û sar û li axa bab û kalên xwe (Kurdistanê) canane parêzvanî kirin, carê wisa hebû ku singê wan bi befra Kurdistanê diqerisî, lê dilê wan tejî hîvî û dest û tiliyên wan hertim bona parastina armancên rizgariya gel germ bûn, ew peyt û çavvekirî bûn û mirov digot qey sir û serma bo wan nehatiye, şer heta dinya tarî bû her berdewam bû, dijmin bi hemû çek û îmkanateka xwe çeperên Pêşmergên egîd ên kurd dikuta, di wî şerî de gellek hêzên dijmin hatin kuştin, birîndar û êxsîrkirin, her wisa gellek çek û cebilxane jî kete destê şervanên PDKÎ, di wî şerî de her wek hate baskirin, tenê Fîroz birîndar bû. Belê şev dîsa hat, em li ber top û qumparebaranên dijmin nikarin hemû kom bin ku bizanin ka emê çawa û ji bo kîderê bimeşin, piştî yek du demjimêran hevalên berpirs biryar dan ku em divêt Berdiyanê cî bihêlin û ji bo ciyekî din herin, her wek caran dîsan kêm kesan dizanî ku emê herne kîderê, lê piştre hate zanîn ku ew cî gundê Ceterê ye. Belê di şerê îro de jî Pêşmergan serkevtinên mezin bidest xistin û derbeke qurs û giran li dijmin dane, li hember wan hemû derbelêxistinan, di wan du rojên şer de me çi Şehîd çi nebûn, bi bixwe serkevtineke mezin bû, ji ber vê hindê jiyana Pêşmergan bo PDKÎ pirr girîng bû. Heval dîsa bêy wê hindê ku bikarin heta çend deqîqeyekê razên yan jî bêhna xwe vedin, divê dîsan leşkerê ku du roj e mêrxasiyan diafirîne rê keve, her deste û girûp personêla xwe kom dike, heta her kes xatircem be ku hemû hevalên wan tewaw û tekûz in, Lika me ji du desteyên: Şehîd Fîroz û Şehîd Mûsa pêk dihat, me jî deste û pelên lika xwe kom kirin, hemû sax û silamet hazir in, lê destkevtên şer wek çek û sîlah pirr in, her tîm û desteyek Pêşmergan jî erk û wezîfên wî hene ku divê cî bînin, desteyeke taybetî hatibû diyarîkirin ku wan êxsîrên şerê roja berê û îro biparêzin, ku zirar negihîje wan. PDKÎ li gora wan usûl û pirensîpên ku hebû, diviya êxsîr û dîlên şer di hemû rewşekê de hatiban parastin û mafê wan hatiba berçavgirtin, ew erke jî di şeran de ji hemû tiştekê zehmettir bû, lê PDKÎ ew erka bi başî bi cî dianî. Belê em li gundê Berdiyanê der ketin û berev gundê Ceterê çûn, me pêşniyar kir ku em demekê bêhna xwe vedin û razên, lê hevalan qebûl nekirin û gotin em diviya di dema herî zû de vira bicî bihêlin, ewa bû ku em bê wê çendê ku bikarin bêhna xwe vedin, em wek leşkerekî mandî û nenivistî, lê belê weke leşkerekî şerker di şer û bernameya xwe de serkevtî ku hemû mandî û nerazanek bîra mirov dibir, li herêma Somayê dirêj bûne berev gundê Ceterê diçûn, em diviya ji rêya eslî ku Soma’yê wek zebeşê dike du pişik, derbaz bin, şeva 15 li ser 16’ê meha 10’an e, esmanê devera Soma’yê pirr saf û zelal e, heyveşeva meha 15 rojî karîbû zilmat û tarîtiya şevê gellek kêm bike, mirov wextê di rê de diçû, dikarî bi hêsanî sîbera bi heybet a Pêşmergan li ser berfê bibîne, dinyayeke kirr û bêdeng bû, û mirov dikarî xişe xişa rêçûna pêyê Pêşmergan li ser berfê bibihîse, lêbelê di esmanên şîn û bilind de mirov dikarî heyveşev û stêrên geş ku ronahî didane ser erdê ku bi berfeke stûr hatibû xemilandin bibîne û car caran jî dengê avêtina topan ji aliyê dijmin ew bêdengî dişkand. Wextê ku em ji rêya "asfalt"(qîr)ê nêzîk bûn, em hemû di cihê xwe de bêdeng sekinîn, heta tîma pêşeng û boseşikênên pêşmergan herne ser rê û rê û cadeyê kontirol bikin heta bizanin ka kemîn û bose ser rê heye yan na, bona wê hindê ku hêz û qaweta mezin bi xatircemî bêt û derbaz be Diviya bête gotin me wek Kadr û Pêşmerge çi wextan ji bo derbazbûna li rêya digel astengan rûbirû nedinbûn, ji ber vê hindê xelkê hemû herêm û navçeyan bi me re hebûn, hemû deşt, dol, kun û qojbineke herêmê wek nava destê xwe nas dikirin. Belê wextê ku heval çûne ser rê û rê kontrol kirin û gotin werin çi tiştek çi nine, em rê ketin û me deşta Soma’yê ku li berfeke stûr sipî bibû, birrî û ji rêya asfalta reş derbaz bûn û çone gundê Ceterê...

**Dûmahîk heye...**

## Şiroveya Peyvên Siyasî



**Berhevkar:**
**Omîd Esxeran**
**omid_anbi@yahoo.com**

# TERORÎZM

Teror tê wateya tirs û xofê û terorîst jî weke kesek elî mirovkuj û tawanbar tê nasîn. Di siyasetê de, terorîzm ji wan kiryarên hikûmet yan jî girûpekê re tê gotin ku ji bo gihîştin bi armancekê yan jî bona bidestvegirtina desthilatê, bi awayekê taybet û tevlîhev, rewşek tejî tirs û xofê bi ser şêniyan de disepînin û ji bo gihîştin bi armancên xwe, ji hemû awayên azar û îşkenceyekê mifahê distînin. Di rastî de terorîzm liv û tevgera wan dewletan e ku ji bo bihêzkirin û ewlekirina desthilata xwe, dest davêjin her kiryarekê û avakirina rewşa tirs û xofê di nav dijberên xwe de. Ji bilî vana jî di civakên cur bi cur de, hin deste û girûp hene ku ji bo qels û lawazkirin û hiloşandina dewlet û dezgehên desthilatdaran metodên terorîstî dişopînin û ber bi her karek têkderane, kuştin û revandina mirova, dizîn, şewitandin û ...wd diçin hetanî ku bikarin etmosfera tirs û xofê bi ser welat de zal bikin û dewlet û dezgehên dewletî lawaz bikin. Eva bona vê çendê ye ku ew bikarin bigihîjin armancên xwe yên siyasî. Terorîzm weke pirseke sereke a hin xwendingehên siyasî yên weke Faşîzm û Makiyalîzmê tê hesibandin. Di rastî de peyva terorê ji rejîma şoreşger û tundrew a Fransayê hatiye wergirtin ku di dema şoreşa mezin a Fransayê de û piştî hiloşandina Jîrondan(1793)’an heya hiloşîna Robisper(serokê Civata Şoreşger a Konvansiyonê) desthilat di wî welatî de bidest ve girtibûn. Partiya Rizgariya Neteweyî a Faransayê avakerê wê rejîmê bûye û bi pêkanîna rewşek tejî tirs û xofê, hejmarek zaf ji siyasetvan û şoreşvan bi Giyotînê îdam kirin ku serdemê han li Fransayê weke **serdemê terorê** hatiye nasîn. Bo mînak em dikarin îşarê bi terora Şah û jina wî, Marî Antowant Kîmyazanê binav û deng, Lawaziyê û Madam Roland bikin. Rejîma han piştî terora Robspêer bidawî hat.Di dîrokê de gellek caran terorên binav û deng rû dane ku em dikarin îşarê bi evên li jêr de hatî bikin:

Abraham Lînkoln, Serok Komarê Amerîkayê, Elêksanderê duyem Împeratorê Rûsiyayê, Cîmz Kapirfîld, Serok Komarê Amerîkayê, Vîliyam Mek Kîlî, Serok Komarê Amerîkayê, Can.F. Kenedî, Serok Komarê Amerîkayê, Arşîdok Firanses Ferdînan, Cîgirê Şayê Otrîşê tevî jin û zarokên wî, Mahatma Gandî, Îndîr Gandî û Racêv Gandî, rêberên Hindistanê, Patrîs Lomba, Serok Wezîrê Kongo û... wd bikin.

# Qelen kelemek bêçare ye

**Narîn Omer**

Qelen (next) ne tiştek nû ye, ew ji kevin ve hatiye xuyakirin û bi xwe di pênasîna xwe ya bi mistadiyên (Dilalat bi erebî) curecur cihek bilind û mezin dide jinê û rêz û hurmetek taybet didê, Lê belê bi derbazbûna çax û deman de ji wateyên xwe yên rêzdar dûr ket û xwe li nakokiyên bê ser û ber qulipand heya ku ew bû kelemek bêçar di riya nişimandin û şûkirina kur û keçan de.

Qelen di warê ziman de bendikek pîroz e û pêwendiyek pîroz di navbera jin û mêr de ava dike, bi navê şûkirin û ji aliyê yasayî ve( yasaya Sûrî bi taybet) tişta ku mêr dide jina xwe wek xelatek pêwîst û denek stûbarî. Dema girêdanek rast û gelen dide nasîn û dibêje ku ew:

“ Şopek ji şopên şûkirinê ye, lê ew ne bingehek ji bingehên wê ye û ne mercek ji mercên rastî û dirustîya wê ye û bendika şûkirinê çêdibe eger qelen bête nasîn, yan jî neyê nasîn, da neyê fêmkirin ku qelen buhayê jinê ye”.

Li vir pirsek giring xwe eşkere dike:

Gelo ma qelen jinê naxe di bazara kirîn û firotinê de? û jinê nake wek hemû tiştên malê û wek pertala tê kirîn û firotin ji aliyê malbata wê ve û malbata dezgîranê wê ve!?

Mada 51/ ji qanûna rewşên kesayetî ya Sûriyayê dibêje:

“Gerek qelenê jinê bête birîn û bibe behra wê, kêlîka ku girêdana rast çêdibe, eger girêdan bête nasîn yan neyê nasîn yan jî nefî bibe”.

Qelen di civaka me de bûye wek pirek asê di riya gellek keç û kurên me de, nemaze di vê dema aloz de, ku buhabûn



bûye wek şûrek tûj li ser serê kesan, nemaze yên feqîr û jar, ta gellek êş û janên civakî peyda dikin ji wan numadeyan (numadeya Qîrebûn e anko inûsê bi erebî)

Li gor lêkolîna min ya berdewam, di vê numadê de gellek keç û law ji min re erê kirin ku qelen sedema herî giring û mezin di peydakirina vê nomadyê de ye.

Bi rastî eger em sedemên qelen bigerin emê bibînin ew pirr in û nayên hijmartin, û bêtar û şopên wê yên nebaş jî pirr in, lê em ê li ser hinek van şopan rawestin, wek:

Wek me diyar kir û peydabûna numada qîrebûnê('inûsê(

Koçberî û mişextî, çimkî gellek xort berê xwe didin bajarên mezin, da qelenê xwe bidin hevdu û gellek ji wan li wir dimînin, û keçên wan dixwazin ji ber ku



ew qelenê buha naxwazin yan jî qelenê paşmayî tenê dixwazin çiqas mezin û pirr be, yan jî berê xwe didin welatê biyaniyê bi wan pereyên ku gerek bibe qelenê dezgîranên wan çimkî ew li pêşeroja xwe mêze dikin û pê difikirin û dibêjin:

"Emê çi bikin piştî xwestin û guhastinê çê bibe û şahiya şêraniyê û zemawendê derbas bibe "!?

Lewra ew dibînin ku ya baş ew e koçber bibin, bi wan pereyên wan veşartî ji qelenê xwe re.

Bêtara sisyan ya ku ji aloziya qelen derdikeve ew e, ku bêtarên bê dawî di navbera jin û mêr de peyda dibin di mehê pêşîn de ji şûkirina wan, ji ber ku gellek malbatên feqîr hene pera deyn dikin, heta qelen didin hevdu û erkê zemawendê pêk tînin û piştî demek kurt hemû zêr û cihazê bûkê jê vedikin, da ew deynê xwe li ser milê xwe hilînin, û gellek ji van bûkan nerazîbûna xwe didin xuyankirin û piştre çîrok mezin dibe û bêtarên zor û nebaş diafirîne.

Nexwe, divê em çareyên bi lez ji van bêtarên bêhêvî re peyda bikin û çareyên li ber çavên me ne û gellek raman û agahî ji me naxwazin, ji van çareyan:

Yek: Em li ser bêtara qelen rawestin ji hemû aliyan ve, û li ser şopên wê yên nerênî û nebaş bisekinin yên ku êş û janên dijwar ji civakê re û ji keç û lawan re tînin.

Du: Divê her kes ji me di rûyê vê bêtarê de bisekine û gotin û karê xwe bi hevdu ve girê bide, ji ber ku dema her yek ji me ji malbata xwe dest pê bike û bêtarê fêr bike, dê çareseriyek rast bide civakê bi tevayî, çimkî civak wek ku dibêjin berhema kes û malbata ye.

Sê: Gerek her malbat li gor rewşa wî ya aborî qelen ji xort bixwaze barê wî giran neke û tişta herî girîng ku ew keç û lawên xwe fêrî prînsîpên baş û rast bikin, da ew bikarin hemû temtêlên şaş û ne rast derbas bikin û bizanin ku şûkirin hevpişkiyeke giyanî û pîroz e, gerek jin û mêr bi hev re alîkar bin di hemû aliyên jiyanê de, da ew bingehekî rast û lihevhatî ji civakê re û ji nifşên nû re ava bikin.

# Di Semînareke Berfireh De, Rewşa Jinan Piştî Derbazbûna 30 Salan Bi Ser Temenê Rejîma Komara Îslamî A Îranê Hate Nirxandin

roja 08.02.2009’an, bi armanca nirxandin û dahûrandina rewşa jinan piştî derbazbûna 30 salan bi ser temenê Komara Îslamî a Îranê û balkişandin bi ser aliyên cur bi cur ên jiyana siyasî, aborî, civakî, çandî û hiqûqî a jinan di Îrana bin destê Komara Îslamî a Îranê de, semînarek berfireh ji aliyê Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê di hola giştî a rê û resmên PDKÎ de hate lidarxistin.





Semînar bi sirûda neteweyî a “Ey Reqîb” û ragirtina deqîqeyek bêdengî bona rêzgirtin ji canê paqij yê şehîdên Kurdistanê dest pê kir.

Piştre Çinûr Qadirî, yek ji endamên Dîwana Birêveber a semînarê, piştî bixêrhatinkirina mêvanan, armanca birêvebirina semînarê şirove kir û bal kişandine ser rewşa jinan li Îranê piştî derbazbûna 30 salan bi ser temenê Komara Îslamî.

Piştre Îlham Çayçî, yek ji endamên Dîwana Birêveber a semînarê, raporek li ser çawaniya amadekirina semînara “Jinên Îranê, piştî 30 salan derbazbûn bi ser temenê Komara Îslamî a Îranê” pêşkêş kir.

Hêjayî gotinê ye ku pitir ji 20 gotarên dewlemend ku ji aliyê nivîskar, kesayetiyên siyasî û civakî û her wiha çalakên mafên jinan, alîgir, endam û dostên YJDKÎ ve hem li derve û hem di hundirê welat de hatibûne nivîsandin, di semînarê de hatin pêşkêşkirin.

Beşek din a semînarê ji bo dahûrandin û nirxandina gotarên pêşkêşkirî hatibû



terxankirin ku ji aliyê Mehbûbe Îbtikar, yek ji endamên dîwana birêveber a semînarê hate birêvebirin.

Di beşa dawî a semînarê de beşdarên semînarê bîr û hizr û têdîtinên xwe di vê derbarê de pêşkêş kirin.

# Keçeke Îlamî Dikeve Ser Mayînê, Birîndar Dibe Û Piştre Xwe Dikuje

Sureya Ezîzpenah, birêvebera Navenda Beşdarîkirin di Paqijkirina Mayînan de, bi nûçegihaniya “ILNA”ê ragihand: Li gor nûçeya yek ji malperan, di destpêka meha borî de, keçeke Îlamî ku bi sedema teqîna mayînê, endameke laşê xwe ji dest dabû, bi sedema givaşa ruhî û pirsgirêkên civakî, dawî bi jiyana xwe anî û xwe kuşt.



Ezîzpenah hişyarî da ku kesên bi rêya teqîna mayînan birîndar dibin, bi taybetî keç û jin, bi sedema rewşa xirab a hundirî û civakî, azarê dibînin.

Sureya Ezîzpenah, serbarê rexnekirina nebûna piştevaniya hundirî û civakî ji birîndarbûyiyên teqîna mayînan, got: Di heyamê piştî bidawîhatina şerê Îran û Îraqê de, tu piştevaniyek ji birîndarên mayînan nehatiye kirin û eva jî yê bûye sedema pêkhatina arîşeyên zaf di jiyana wan kesane de. Wê got ku pirraniya wan kesan bi taybetî keç û jin, piştî ji destdana endamên laşê xwe bi sedema teqîna mayînan, xanenişîn dibin û tevî gellek pirsgirêkan rûbirû dibin an jî hêviya pêkanîna jiyana hevseratiyê ji dest didin yan hevjînên wan lê cuda dibin û ev yek dibe sedema têkçûna rewşa normal a jiyana wan.

# Berpirsên Xwendingên Bajarê Bane, Ji Bo Nûkirina Xwendingehan, Bi Zorî pere Ji Xwendekaran Werdigirin

Nûçegihaniya Çavdêr a Mafê Mirovan li Kurdistanê ragihand ku serperestên çend xwendekaran li bajarê Bane, derheq kiryara xwendingehan, weke xwendingehên “Îfet” û “Rûdbar” ku bi hêceta nûkirina xwendingehan, daxwaza pere ji xwendekaran kiribûn, nerazîbûna xwe nîşan dan.

Çend rojan berî niha berpirsên



xwendingehên kevin li bajarê Bane, daxwaz ji xwendekaran kiribûn ku ji bo nûkirina xwendingehan, hevkariya diravî bikin.

Hêjayî gotinê ye ku Îdareya Perwerde û Hînkirina bajarê Bane, budceya hewce ji bo nûkirina xwendingehan tune ye, lewra bi berpirsên xwendingehên kevin re hatiye ragihandin ku divêt bona nûkirina xwendingehan, pere ji xwendekaran wergirin. Xwendekarên xwendingehên “Îfet”û “Rûdbar”ê, bi giştî li malbatên kêmdahat û xizan yên kenarnişîn ên bajarê Bane ne.

# Cewad Elîzade, Di Pêwendiyeke Telefonî De, Rewşa Xwe Bi Xirab Da Zanîn



Li gor nûçeya “akhbare rooz”, roja 08.02.2009’an, Cewad Elîzade, di pêwendiyeke telefonî tevî malbata xwe de, rewşa xwe xirab da zanîn ku bi sedema rûbirûbûn tevî hêzên Ewlekarî de, pêwendiya xwe qut kir.

Cewad Elîzade, Çalakê Mafê Mirovan, roja 16.12.2008’an, di salvegera şehîdbûna Îbrahîm Lutfulahî de hate binçavkirin.

Navhatî di heyamê binçavbûnê de, tûşî azarên pîskolojîkî û îşkenceyan hatiye, bi awayekê ku sûmetê wî pirr birîndar bûye û xwînrêjî kiriye û niha di warê cendekî de di rewşeke xirab de ye.

Navhatî niha di hepsa takekesî a Wezareta Ewlekarî a bajarê Sine de ye.

# FELSEFE



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Ferhengnasên felsefeyê yên navdar *P.Yudîn* û *M.Rosenthal* girîngiya felsefeyê nîşan didin û wisa dibêjin: "Felsefe, navgîniyeke hêzdar ya zanîn, livbatî û çalakiyên mirov e.

Kesê/a ku felsefeyê nexwîne an jî hayê wî/ê ji felsefeyê tune be, nikare wateya tu têgîn û rasteqîniyan dayne an jî bûyer û rûdanên gelemperî bi wateyeke rastîn şirove bike. Felsefe, hilika zanistê ye. Mirovê/a ku ji felsefeyê sûdê werbigire û li gora rêbaz û azîneyên zanistê tev bigere, dê bikaribe sedem û encama bûyeran bibîne û arasteyî rêya çareseriyê bibe. Dê bûyer û geşedaniyên gerdûnî li gora rêzana sedem û encamê şirove bike û bigihîje encamekê.

Felsefe, teşegirtina hişmendiyên civakî ye. Ji zanîna hilberiyê bigir heta ya aboriyê, ji zanîna dîrokê bigir heta ya çand û civaknasiyê; ji zanîna perwerdehiyê bigir heta ya çand û wêjeyê...hemû şaxên zanînê û nêzîkdaynên zanistî li ser hîmê felsefeyê têne rûnandin û bicihkirin. Wekî din jî felsefeya zanistî, peresîna zagonên civakî û civaknasiya zanistî yên giştî derdixe holê. Bi rastî, civaknasiya zanistî li ser hîmê felsefeya zanistî tê damezrandin. Belê ligel van hemûyan felsefe jî li gora hêz û pêwendiyên hilberiyê dirûv û teşe digire.

Felsefe, pêkereke çalak a ku her gav zandarî û kardariyê pêş ve dibe ye. Bi feraseteke felsefeyeke wisa re, beşên felsefeyê; ango derûnnasî (psîkolojî), civaknasî (sosyolojî), sinc û gewzîn her diçin li zanînên xweser ên ku wekî kevneşopiyên felsefeyê tên zanîn, dadigerin. Rast e. Wekî berê jî hate diyarkirin; hemû beşên zanînê xwe dispêrin felsefeyê. Lewre armanca hemû beşên zanîn û zanyariyê, dîtina pêwendiya navbera tişte û kirdeyê ye. Hin zanîn an jî zanyariya tişteyê wekî bingeh, hin jê jî kirdeyê wekî bingeh dipejirînin. Jixwe gengeşiya gelemşeya navbera hemû zanînan jî ji vir dest pê dike.

Wekî ku tê zanîn, jêderka hemû zanînan felsefe ye û felsefe jî bi gellek cure, çêşn û xalên girîng ji hev û din vediqete. Belê du herikînên felsefeyê yên bingehîn hene: Yek, Felsefeya Mengîwer (îdealîst) du; Felsefeya Pêzewar(materyalîst). Felsefeya mengîwer, ramanê (îdeyê) û ya pêzewar jî daringê wekî diyarker dibîne. Ji roja ku felsefeyê dest pê kiriye û heta îro, gengeşiya navbera herdu ferasetên felsefî bi hemû dijwariya xwe didome û dê bidome jî. Ji do heta îro, pêrêzkarên herdu ferasetên felsefeyê, yek jê Hegel, yê din jî Engels e. Hegel li gor demê ramanê, û Engels jî daringê wekî bingeh dibîne. Gengeşî jî bi gelemperî li ser van herdu hîman didome. Engels dibêje: "Ew mirovê ku hegel seberjêrkî daleqandibû me li ser piyên wî da rûnandin." Marks jî dibêje:" Me tiştek li xwezayê zêde nekir. Tenê me ew, wekî ku dixuye hilda dest û şirove kir." Parêzkarên felsefeya mengîwer, Calvin û Luther jî ramanên xwe yên berevajî felsefeya pîzewar ku li gora dogmayên olî teşe girtine, bi vî awayî tînin zimên û dibêjin: " Divê hest, raman, hezkirin, hilberîn, behre û hêzên veşartî yên mirov, yên civakê bêne pêpeskirin û dewisandin." Lewra ev herdu ramanwerên mengîwer, armanca hebûna mirov xwe gazîkirina xwedawendiyê dibînin. Dîsa Calvin dibêje: "Karesata tirsnaktirîn tevger û biryardanîna mirov a bi serê xwe dide ye." Li gora nêrîna Calvin, divê ku mirov hîçayiya (rebeniya) xwe bizanibe û ji bo kêmxistin û mirandina xwe çi ji destê wî/ê bê, wê bike. Li gora Luthe jî, sparteka mezintirîn a mirov hêza xwedayî ye. Mirov ne xwemal e(aidê xweye). Ev feraseta ku mirov reben û serberjêr dike û wî/ê ber bi evdîtiyê(bi taybetî evdîtiya evd û serdestan) de didehifîne; hê ramana dêrê (kinîse) ya Serdema Navîn e.

Îcar, şirovekirina xwezayê, baweriyên olî, raman, nêzîkayîtêdan û têkilîdanînên civakî û mirovî hemû, an li ser hîmê felsefeya mengîwer an jî li ser hîmê felsefeya pêzewar bilind dibin. Çavkaniya civakên çînî, mêtingerî, kedxwarî, şer û pevçûna navbera mirovan, pirsgirêkên herêmî û gerdûnî hemû hêza hilberînê ya ku felsefe bixwe jî afirandiye, ye. Her çend ku herdu ferasetên felesefeyê ji hev û din wekî cihê bêne xuyakirin jî dîsa dozîneya teşeyên aborî yên civakî, dozîneya herdu felsefeyan ya hevpar nîşan dide. Felsefeya dîyalektîk; felsefe jî tê de, daringê (madeyê) wekî afirînerê her tiştî, dibîne. Mirov bi xwe jî hebûneke daringî(madî) ye.

Bi kurtayî felsefeya daringî, feraseteke wisa ye ku mirov rikn û ripinê her tiştî dihesibîne. Her wiha her gav bi fikr û feraseta ku her tiştî dispêre vîna mirov tevdigere.

Kaniya Helbestan

## Axîna Te Nalîna Min

Feqiyê Teyran



Axîna te nalîna min
Erdû asîman pirr şîn e
Gulê ez canê te karvan
Mame wek kalek hilhile
Ez digerim li vê dinê
Sebra dilê xwe nabînim
Ka delala min bidin min
Min bi tiştan nexapînin
Geh dikevim geh radibim
Ez pêşiya xwe nabînim
Dil birîn e dil axîn e
Bidin roniya çavên min
Bidin roniya çavên min

Gelo çima hûn serdest in
Em bindest in li vê dinê
Ez digerim li vê dinê
Sebra dilê xwe nabînim
Ka delala min bidin min
Min bi tiştan nexapînin
Geh dikevim geh radibim
Ez pêşiya xwe nabînim
Dil birîn e dil axîn e
Bidin roniya çavên min
Bidin roniya çavên min

# Kurdistana Sor Yan Perçeyê 5’an



Rêzan Mad

Di kirîza çareseriya pirsgrêka gelê Kurd de, gellek fakterên kêm tên zanîn, û ne tenê di sînorê dewletekê de an jî bi netewyekê re girêdayî ye, ji ber ku him fakterên herêmî, him jî Cîhanî hildigire. Yek ji sedemên ku çareseriyê dixe zorê, ev e ku ji ber bûyerên şidet û bazirganiyê her wiha rewşa jêografîk, kurdan jiyana Koçberiyê dimeşand, bi demsalan an jî girêdayî guhertinên hawîrdorê cîh û warê xwe diguhertin.

Di sedsala 16–17’an de li Rojhilatê Kurdistanê hejmarekî Kurd derbazî cihê niha yê Turkmenistanê bûn. Li sedsala 18’an de jî Koçekî zêde li Bakûrê Kurdistanê ji ber zordariya Osmaniyan bi rêya Gilîdaxê ber bi Ermenistanê ve koçber bûne. Rewşa Koçberiyê her dem bi ahengekî bi hawîrdorê re dijiya. Lê Şoreşa Bolşevîk 1917-1922’an dema xwe li çarenivîsa gelan xist û ne tenê nehişt sînorê jiyanê, hemû rengekî nû werbigire, ji ber ku bandora xwe di Cîhanê de da hîskirin.

Ligel hemû miletên Soviyetê, Kurd jî wek kêmneteweke bû xwediyê wê derfetê ku statûyek fermî werbigire. Di 16’ê Tîrmeha 1923’an de, Komîteya Navendî a Soviyetê bi îmzeya Kîrîov li Karabaxa çiya, herêmek bi navê Kurdistana Sor bi fermî nasî(Bi Payîtexta Laçîn). Berpirsiyarê Komîteya Navendî a Kurdistanê Hûsû Haciyof bû. Saziyên perwerdeyî, weşan û çapemenî bi zimanê dayîkê ava bûn. Lê her wek hemû carên din Kurd bûne goriyê siyaseta hundur û derve. Ji ber serhildana Bakûrê Kurdistanê, her wiha têkilî û dengeyên navbera Soviyet û Turkiyê, dewletên herêmê ew Kurdistana Serxwe bi xeter û asteng dîtin û piştî 7 salan di 1930’ê de ji holê rakirin û dawî bi Kurdistana Serbixwe hat.

Di sala 1937-1938’an de, Stalîn operasiyonên paqijkirinê dest pê kiriin, sirgûnî û gulebaran rêbazên esasî yên pêkanîna wê bûn. Kurd ji wê demê ligel kêmnetewên din sirgûnî Asyaya Navîn hatin kirin. Ligel Şerê Cîhanî yê duyemîn ku Soviyetê serkeftin bidest xist, rewşa kurdan li Soviyetê nehat guhertin û di bingeh de hemû saziyên çandî, perwerdeyî bi zimanê dayîkê hatin qedexekirin. Yanî nasîna Neteweya Kurd fermî nebû.




Car din, dawiya salên 80’ ê û destpêka salên 90’î de ku Soviyet ber bi têkçûyînê ve diçû, pirsa Kurdan car din bi awayekî germ derket holê, bi taybet ji nû ve dane naskirina Kurdistana SOR. Bi vê yekê saziyên mezin wek YEKBÛN ku hemû Kurdên Soviyetê di nava xwe de hildigirt, di bin rêberiya Wekîl Mûstefayof de mijûl dibû.

Cûda cûda hewldan pêşketin, bi meş, name û mîtîngan ku dixwestin vê pirsê car din bidin diyarkirin. Heta ji M.S. Gorbaçof re ku Serokê Soviyetê bû ev yek dane diyarkirin. Di Mayîsa sala 1991’an Gorbaçov vê hewldana ji nû ve avakirina Kurdistana SOR destek dike û silavê xwe ji Kurdan re dişîne. Em dizanin ku di dawiya sala 1991’an de, bi fermî dawî li Împiratoriyeta Cîhanî a Soviyetê hat. Lê Kurdan xebatên xwe ranewestandin.

Tê zanîn di şerê Azerî û Ermeniyan de, li Herêmê kavilkarî û texrîbatên mezin çêbûn. Herwiha di herdu milan de jî Kurdan di şer de cihê xwe girtin, yanî şerê birakujiyê jî bû qismet û nesîba Kurdan. Yanî bi dara zorê ji bo Axa biyanîyan ber didan canê hev û şer dikirin. Me berê jî dabû zanîn, li gor dûzena kevin, Kurdistana SOR di axa Azeriya de bû, lê di vê dema şer li 17’ê Gulana 92’an de paytext Laçin dikeve destê Ermeniyan, her wisa ligel wê bajarên din yên di Kurdistana SOR de cihê xwe digirin weke Kelbecer, Kûbatlî, Zengîlan. Heya Cotmeha 93’an dikevin bin desthilata Ermeniyan. Piştî ku Heremên Kurdistana Sor bi taybet Laçîn dikeve bin çavdêriya Ermeniya, nêzîkbûn û dostaniya Ermeniya tevî Kurdan taybetî li Soviyetê li nav hemû saziyên gelerî û …hwd li Emenîstanê pêşketin.

Wê demê Wekîl Mûstafayof Fermandarekî kevin ê artêşa Sor ku dengeyên herêmê û nasiyarê wî zêde bûn, yekser ev firsend bikar anî û wekî Serokê bizava azadiyê bi otobûsan, milet bire Laçînê û deklarasiyona Serxwebûna Kurdistana Qefqaziyayê eşkere kir û li 9-10 Hezîranê ev ji hemû cîhanê re dan zanîn. Ji wê demê virde ev deklarasiyon li ser Kaxezê maye û tu hemelekî xwe jiyanî nine. Herwiha nezalalî jî di navbera Azerî û Ermeniyan de berdewam in û çi dibe bila bibe, lê du car avakirina Kurdistana Sor dîsa jî hêvî û bi xwe bawerbûnekê dide Kurdan. Komara Kurdistanê û Kurdistana Sor tîrojkek berbiçav û ronak a gelê kurd in.

# Dûr Ji Hebûna Bêrîvanê...

**Cawîd Esxerî**

Her li vê demê ku çavên te şiyana dîtina çavan nîne, li vê çaxê ku henîskên te mandî û westiyayî rû li textê dilan nakin, her ji vî çaxî ve hest bi êş û jana te dikim, dizanim ku tu êş û janeka bêdawî yî. Çivîka dengxweş narûnê ser dara temenê te, lê hevalên te mîna perperokan dijîn, lê bê hebûna mijîna ruha te.

ax... ji bo roja nozdan ya meha Rêbendana sir û seqem ku berê esman li me girt, evrên reş û tarî bi hirmên û gurmêna xwe bi carekê , dil û hinav û kezeb hejand.

Eva çend roj e dûr ji hebûna te (Bêrîvanê) me bihurand, hêvî hemû bûne dîl û bi êtîmî di dil de xem barandin.

Eva çend roj e dûr ji hebûna te, roj li ber çavan roj bo rojê, roj dimirin û westiyane, nema îdî girnijîn û vîna jînê ruya bigirin.

Eva çend roj dûr ji hebûna (Bêrîvanê) cihê wê herdem vala ye, jîyan bi eşqa xwe me têr nake, dergeh hemû qerisîne, qelem jî ji ber nebûna te hawar dike, evro dîtina te diviya.

Eva çend roj dûr ji hebûna te jiyan ji me derbas dibe, dozex her roj sipêdê bi agirê xwe yê dijwar li pêşber wênê te,



me disujîne.

Eva çend roj in bîrhatinên te, li her cihê her roj li tev heval û hevpolên te digerin.

Eva çend roj in tu dûr ketî ji me, lê pêtir nêzîktirî ji me: li kîjan alî digerim, li ser refika kunçê mala min wênê te, li ser dilê min navê te, li ber çavê min rengê te, di guhê min de deng û kenîna te...

Eva çend roj li me burî, lê hêşta her weku duhî tu di bîra me de yî.

Kengî şeva tarî guhurî, xwe digel rojê guhurî, hingê belkî ez jî her wê sibê li ber wêneyên te negirîm...

**Ji Yekîtiya Nivîskarên Kurd li Swêdê**

# Roja Danasîna Pirtûkan

Di dawiya hefteya derbasbûyî de dildarên edebiyata kurdî li Pirtûkxaneya Kurdî ya Stokholmê civiyan. Li wir dildarên edebiyatê, şirovekêr, rexnegir û nivîskar li ser sê pirtûkan, ”Dîroka Rûreş”a Bûbê eser, ”Gotinên Gunehkar”a Hesenê Metê û ”Du Dilop”a Enwer Karahan kûr bûn.

Çalakî weke civînek li ser pirtûkan hatibû hizirkirin. Lê firehbûn, wext û dîtinên dewlemend ew kir roja danasîna pirtûkan. Çalakî ji aliyê Serokê Yekîtiya Nivîskaran, Silêman Demir ve hate îdarekirin. Nivîskar Sidîq Bozarslan jî rê dida dîtinên beşdaran.

Nivîskaran qala dijwariyên dema afirandinê û nêzîkbûna xwendevanan li berhemên xwe kirin. Beşdarên civînê jî pirsên balkêş kirin û bersivên xwe yekser girtin.

Şanoya Bûbe Eser piştî lêkolîna 11 mehan li Herêma Kurdistanê, li ser qirkirina Enfalê derket holê. Lîstika şanoyî bi dîmenên dramatîk têra xwe bandorê li mirovî dike. Dema wî bi xwe jî qala şewata dayikên kurdan li herêma Barzanê dikir, diçû dema lêkolînê û kesera xwe dihanî zimên…

Silêman Demir, li ser pirtûka Hesenê Metê kûr bû. Qala çîroka wê bi firehî kir. Paşê pirs ji Hesenê Metê hatin kirin. Diyar bû ku Nivîskar Metê bêhtir li ser pirsgirêkan



dinivîsî. Biçûkirina kes û baweriyan çi caran ji xwe re bingeh negirtibû.

Paşê, nivîskar Hesenê Metê bi analîzek fireh, novelên Karahan nirxand. Analîza Metê tevayê niqaşan xiste bin bandora xwe. Enwer Karahan bi hostebûnek mezin, bi zimanekî xweş beşek ji pirtûka xwe xwend. Xwendina wî û hostebûna karanîna tona dengê xwe, zimanê kurdî bi mirovî şêrîntir dikir. Her wisa wî şensek da beşdaran ku, dewlemdî û teybetmendiya stîla wî nas bikin.

Xwendin û danasîna pirtûkan 6-7 saetan domiya. Beşdarên civînê wextek hêja û bi sûd buhirandin. Yekîtiya nivîskaran bi vê xebatê, piştî demek dirêj, bi beşdarbûna gellek kes, hiziran û medya kurdî serkevtinek baş bi dest xist.

**Jêder: Ajansa Zarathustra News**

## Dengê Rojava

# Civakên Windayî Û Mezinkirina Mirovan



**Besam Mistefa**

Nexweşiyên civakên me yên rojhilatê pirr in, rê û rêbazên me jî ne diyar û ne zelal in. Lê nexweşiya herî mezin ew e ku gelên navçê li awa û çareseriya van nexweşiyan nagerin.

Diyardeyeke balkêş û xudan dîrok di nav civakên rojhilatê de, mezinkirina mirovan e ku vedigere sedemên dîrokî û dêrîn yên ku ciyê xwe girtine û bûne semyanek ji civakên me re.

Mezinkirina kesan, nemaze ya lîderan rexnê wek alaveke pêşxistin û guherînê di nava civakê de nahêle. Eger hat û kesek wek lîderekî dîrokî û bê şaşîtî hate dîtinê, dê rexne hema bête qedexekirin. Di serî de jî, dê kesê/a rexnegir wek kesekî/ê xayîn û dijmin were hesibandinê ku mixabin gelê me jî ji vê yekê bê par nemaye.

Ji aliyekî din ve jî, mezinkirina kesan dibe asteng di pêşiya pêkanîna guherînan di civakê de, di çi warî de dibe bila bibe. Her, kesê/a mezinkirî û desthilata wî/ê rewşê diçespînin, di riya alavên medyayê de û her guherînekê wek metirsiyekê li ser hebûn û berdewamiya xwe dibînin.

Nexweşiya mezinkirinê bi derbasbûna demê re di nav civakê de dibe kultûr û herkes pê dikeve. Di civakek wisa de, her kes serokek li ser yê din-yê di bin xwe re: Mamoste ji şagirtan re, karbidest ji welatiyan re, mêr ji jinê re, bav di malê de...hwd!

Encama herî xerab ya vê diyardeyê, dîtina netewê û welat bi tevahî di kesatiya serokî de ye. Welat piştî serok tê dîtin û herdû bi hev re têne girêdan. Êdî, bê hebûna serok ne mumkin e welat rizgar û serbixwe bibe!

Weke hemû miletên cîhanê, gelê Kurd xudan serok û lîder e. Lê, mixabin bi herikîna ewqas dem û dewrana re hêjî xêzên pêdar û bilind di nava gelê me de cî negirtine. Pêwîst nake li vir wan xêzane rêz bikim, ji ber ku dem hatiye êdî di warê teorîk bikevin warê pratîkê de, û divêt em-ku banga vî tiştî dikin-ji xwe dest pê bikin…wek ingilîz dibêjin: “ku herkesî pêşiya deriyê xwe paqij kir, dê kolan hemû jî paqij bibe”.

Ji ber ku welat şêrîn e…buhiştek e-nekin dojeh-li ser rûyê zemîn e.

agiri

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail:
agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com



## Keça 12 Salî Ya Pêşmergeyekî PDKÎ Di Bûyerekê De, Jiyana Xwe Ji Dest Da



Roja 06.02.2009'an, **Bêrîvan Ehmedzade**, temen 12 salî û xwendekar, bi sedema bûyereke nexweş û degme li Navenda 3 a Kurdistanê jiyana xwe ji dest da. Roja 07.02.2009'an, termê Bêrîvanê, bi beşdariya hejmarek ji Kadro û Pêşmerge û malbatên wan û endam û alîgirên PDKÎ li bajarên Hewlêr û Soran û herwiha bi beşdariya mamosta û hevpolên wê, hate binaxkirin. Hêjayî gotinê ye ku Bêrîvan, keça Nisret Ehmedzade, Pêşmergeyê dêrîn yê PDKÎ ye. Bi hinceta koça ne biwext a Bêrîvana Kekê Nisret, em behî û sersaxiya xwe pêşkêşî malbat û xizm û kesên wê û hemû xelkê Kurdistanê dikin.

## Li Urmiyê Serbazekî Kurd Bi Destê Fermanderê Xwe Hate Kuştin



Hate zanîn ku roja 13.02.2009'an, yek ji Fermanderên binkeyeke leşkerî li bajarê Urmiyê, êrîşê dike ser serbazekî Kurd bi navê **Şehab Muradî** û wî dikuje.

Ew Fermanderê Komara Îslamî bi neteweya Kurd û Misilmanên Sunnî, bêhurmetiyê kiriye û Şehab Muradî bersiva wî dide û ev yek bû sedema vê bûyera tal û Şehab bi destê Fermanderê xwe hate kuştin.

Şehab Muradî, xelkê gundê Îndirqaş li devera Şarwêrana Mehabadê ye.

Bêhurmetîkirin bi baweriyên olî û neteweyî yên serbazên Kurd û neteweyên din, di binkeyên leşkerî ên rejîma Îslamî a Îranê de yê bûye edeteke normal.

## Li Îranê, Bengdar Di Mehê De, 311 Milyon Tûmenan Ji Bo Kirîna Madeyên Bêhişker Xerc Dikin



Encama lêkolîneke li Îranê derxist holê ku bengdarên tûşbûyî bi madeyên hişber, di mehê de, 30 heta 50 hezar tûmenan ji bo kirîna madeyên bêhişker didin. Lêkolîna han ku di zanîngeheke Îranê de hatiye encamdan û dide xuyakirin ku bi giştî li Îranê Bengdar di mehê de, 311 milyon tûmenan ji bo kişandina û bikaranîna madeyên bêhişker xerc dikin.

## Derxistin, Bêkarî Û Nedana Miaşê Kedkaran Li Rojhilatê Kurdistanê Dom Dike



Hindî ku dem dibore, rewşa jiyana karkerên Kurd li her 4 parêzgehên Rojhilatê Kurdistanê, nemaze li bajarên Urmiye, Selmas, Mehabad, Seqiz, Bokan, Qurwe, Kirmaşan, Sine û Îlamê xirabtir û dijwartir dibe.

Di yek du salên borî de, ji ber siyasetên xirab ên aborî ên rejîma desthilatdar, karkerên kargeh, karxane û pirojeyên dewletî berdewam rastî derxistin û bêkariyê hatine û miaş û heqdestê wan çend mehan nahê dan. Vê rewşê jiyana kedkarên Kurd û malbatên wan bi gellek pirsgirêkên xurt û micid re rûbirû kiriye. Di yek du mehên borî de, sedan karkerên Kurd li cihê kar hatine derxistin. Betalî û bêkarî yê bûye arîşeyek mezin ji bo karkeran û sedan kedkarên Kurd ev çend mehan in ku miaş û mehaneya xwe wernegirtine. Eva di halekê de ye ku pirraniya karkerên Kurd di xaniyên kirê de ne û ji ber nedana miaş, karker û malbatên wan rojên dijwar derbaz dikin. Ji ber vê rewşê, karkerên Kurd, berdewam girev û meşên nerazîbûnê lidar dixin.

# Kurdistanmedia

## Malperek Ji Bo Zanyariyan Li Ser Kurdên Rojhilatê Kurdistanê




Ji bo xwendin û wergirtina zanyariyên nû li ser rewşa Kurdan li Rojhilatê Kurdistanê di warê siyasî, aborî, civakî û çandî de, serdana malpera kurdistanmedia.com'ê bikin.

Kurdistanmedia bi du zaravên zimanê Kurdî (Kurmancî û Soranî) û her wiha bi zimanê Farsî zanyariyan li ser Rojhilatê Kurdistanê belav dike. Beşa girîng a nûçeyan li ser mafê mirovan in

## Ji Sedî 40 Berendamên DTP'ê Jin În

Ji bo hilbijartinên Şaredariyan yên 29'ê Adarê, ji sedî 40'ê benendamên DTP'ê ji Jinan pêk tê. Li gor lîsteya berendamên DTP'ê, 40 ji sedê a berendamên şaredariyên Bakûrê Kurdistanê ên ser bi vê partiyê ji jinan pêk tê. Ev gava DTP'ê, proseyek bicî û girîng e bona beşdarîkirina jinan rêvebirin û di biryardan û hwd... de.